Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 51
15'ê November
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Bo Cara Yekemîn Kurd Di Rêxistina Navneteweyî Ya Netewên Bê Nûner De

Bo cara yekemîn nûnerê Kurdan, PDK Îranê di heştemîn civîna Rêxistina Neteweyên bê Nûner(UNPO), weke endamê çavdêr beşdarî kir û li ser mafê Kurdan sekinî...

**Rapor di rûpela 3'an de**




# Îran Û Sûriyê Ji Somaliyê re Çek Şandine

Li gor raporeke nû ku ji aliyê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ve hatiye weşandin, welatên Îran û Sûriye û 8 welatên din berevajî peymannameya vê rêxistinê ji Somaliyê re çek şandine, li gor gotinên karnasên vê rêxistinê ku zêrevaniyê li ser pirsa qedexebûna şandina çekan ji Somaliyê re dikin, dewletên Îran û Sûriye tevî girûpên Îslamî yên tundrew "Mehakimê Şerî" di Somaliyê de peywendiyeke xurt hene.

Hêzên ser bi "Mehakimên Şerî" li dijî dewleta navendî şoreş kirin û gelek ji xaka Somaliyê bi dest girtin. Wan di meha Fivriyeya borî de "Megadîşo" Paytexta wî welatî bi dest girtin.

Tê gotin ku di şerê Hizbulaw bi Îsraîlê re 700 hezar kes ji Somaliyê ve çûne Lubnanê heya ku li dijî Îsraîlê şer bikin.

Di raporê de hatiye ku du kesên Îranî çûne Somaliyê heya ku li hember wergirtina Uraniyûmê de çek û teqemeniyan bidne neraziyên Îslamî. Herwiha raporê welatên Etyopî, Erîtere tawanbar kirine ku wan jî ew peymannameya pêpes kirine.





## Li Hember Îran Û Sûriyê De Nerimbûn Ne Di Holê De Ye



Bîroya Serok Wezîrê Birîtanyayê dibêje serbarê gaziya Tonî Bilêr ji Îran û Sûriyayê seba hevkariya wan li dor cihgîrkirina aramî û tenahî di Îraqê de, lê siyaseta Birîtanyayê li hemberî van du welatan de nerim nebûye.

Bilêr di axaftina xwe de bang ji Îran û Sûriyayê kir ku di pêxema pêşvebirina prosesa aştiyê di Rijhilata Navîn de alîkariyê bikin. Wî da zanîn ku hin hêzên li derveyî Îraqê ne ku di çarçoveya afirandina fitne û têkdana rewşê de dimeşin. Herweha got ku parek zaf ji pirsên Îraqê girêdayî bi wan hêzan e ku rih û rîşala wan li terorîzmê û kiryarên tundrewane de ye.

Bilêr got ku Îran bi piştewaniya xwe ji girûpên terorîstî astengan li ser rêya aştiyê pêk tîne û îşare kir ku ger ew li hemberî soz û peyamên navneteweyî yên xwe de berpirsiyar nebe, dê rastî baykotan bibe.

**Çavkanî: "BBC"**

## Amerîkayê Hişyarî Da Dewleta Sûriyayê



Wezîra Derve ya Amerîka, Kandolîza Rays di hevpeyvîna xwe ya bi rojnameyek Îsraîlê de dazanîn ku Sûriya welateke cihê tirs û xofê ye. Ew dibêje ku min ji rayedarên Sûriyê re dabû zanîn ku divêt ew helwestên xwe biguherînin û hemû aliyek jî dizane ku Sûriya piştgiriya aramî û tenahiya Rojhilata Navîn nake.

Rays herweha da zanîn ku hewil dide vê peyamê bide berpirsiyarên Sûriyayê ku helwestên xwe biguherin û got Amerîka li ser vê bawerê ye ew çekên ku digihîjne destê Hizbulahê, ji rêya Sûriyayê ve diçin.

Romannivîs, Serkan Birûsk Di hevpeyvînek Taybet Bi Agirî Re:

## "Nivîskarên Me Xwe Bo Avakirina Zimanê Xwe Yê Wêjeyî Nawestînin"



Hevpeyvîn di rûpela 8 û 9'an de

## PIREÇANDÎ



Rûpela 10

# Daxuyaniya Deftera Siyasî Ya PDK Îranê Derheq Wan Nivîsên Ku Bi Navên Dilxwaz Li Ser Pirsgirêkên Navxwe Yên Partiyê Di Malperên Înternetê De Belav Dibin

Heyamek e hin kes bi armanca dilsojî û xemxwerî ji bo PDK Îranê yan alîgirî ji kesayetiyên nava partiyê, li ser malperên înternetî û bi navên dilxwazû nenas, her carê kesayetiyekê didin ber êrîşê û bi vî awayî bêhurmetî ji hemû kesayetî û perêziyan re tê kirin û qedr û rêz ji bo kesê nahê girtin.

Hetanî di vê dawiyê de kar yê gihîştiye ciyekê ku li çarçoveya bêhurmetîkirin bi kesayetiyên nava PDK Îranê de derbaz dibin û bêhurmetî û bêrêziyê bi kesayetî û aliyên din jî dikin.

Bêguman naveroka hinek ji van nivîsar û dijûnamane bi armanca dijminatî tevî PDK Îranê ye ku ji bo kûrtirkirina dubendiyê di nav Partiya Demokrat û alozkirina têkiliyên nava partî û aliyên dost yên PDK Îranê tên belavkirin.

Bêşik jî li wan babet û nivîsarên ku bi navê dilxwaz û nenas tên nivîsandin û belavkirin, heke niyeteke xêr jî li pişt de hebe, heya niha ne tenê tu alîkariyek ji bo pêkanîna tebahiya pêwîst di nava Partiya Demokrat de nekiriye, belkî rewş aloztir û valahî berfirehtir kirine. Bi vî awayî encama nexwestî û ne bi dil ya kiryar û kirinên van kesane jî bi vêc û qazancê dujminên Partiyê bi dawî bûye.

Lewra em ji hemû dilsoj û alîgirên PDK Îranê daxwaz dikin di vê rewşa hesas û nazik de ku PDK Îranê tê de dibore, hest bi berpirsiyariyê bikin û ji nivîsandina wan cure gotarane xwe biparêzin û ji bo aramkirina kêmasî û pirsgirêkên hundir yên partiyê hevkariya me bikin.

Em van cure nivîsînane - ji bo tagirî yan dijberî tevî her alî û kesayetiyeke partiyê bihên nivîsandin - şermezar û mehkûm dikin. Li hember de pêşniyar û rênûmayiyên dilsojane yên endam û dostên partiyê ku bi nav û nîşan bi destê me bigihîje, em dê bi rêz û hurmetê ve werbigirin.



**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**12.11.2006**
**21.08.1385**

# Daxuyaniya Polîtbîroya PDK Îranê Li Dor Derkirina Biryara Girtina Refsencanî Û 8 Kesên Din Ji Rayedarên Rejîmê Ji Aliyê Dadwerê Dadgeha Federal Ya Arjantînê

**Hevwelatiyên hêja!**
**Xelkê xebatkar yê Kurdistanê!**

Li pey daxwaza Dozgerê Giştî yê Arjantînê, Dadwerê Dadgeha Federal di roja 09.11.2006'an de, biryara girtina "Haşimî Refsencanî", Serok Komarê berê yê Îranê û 8 kesên din ji karbidestên Komara Îslamî der kir ku di nava wan kesan de navê "Elî Ekber Wilayetî", "Elî Felahiyan" û "Muhsin Rizayî" ji desthilatdarên payebilind yên rejîmê tê de têne dîtin ku tawana wan biryargirtin û pilandanîn ji bo teqandina Navenda Çandî ya Cihûyan li "Buenos Aires", paytexta Arjantînê di sala 1994'an de ye ku bû sedema kuştina 85 kesan û birîndarbûna bêtirî 200 kesên din.


Hashmi Refsencanî


Elî Felahiyan


Musin Rizayî


Eliekber Welayetî

Eva bo cara çendemîn e ku berpirsiyarên payebilind yên Komara Îslamî seba terorkirina neyarên rejîmê û xelkê sivîl li derveyî welat wekî tawanbar tên naskirin ku nimûneya herî girîng a wan mehkûmkirina serokên rejîmê ji aliyê dadgeha Berlînê di bervara 10.04.1997'an de bi guneh û sûça terorkirina Sekreterê Giştî yê PDK Îranê û hevalên wî bû.

Rejîma Komara Îslamî di heyamê temenê desthilatdariya xwe de xebitiye neyarên xwe ên siyasî ji rêya terorê ve bi bêy liberçavgirtina qanûn û raya giştî, heya di nava welatên Ewropayî de ji holê ra bike. Mixabin di vê derheqê de welatên Ewropayî bi sedema têkiliyên ticarî û bazirganî ên xwe bi rejîmê re, ji kiryarên terorîstî yên Komara Îslamî çav miqandin, heta em dikarin bibêjin rêz ji qanûn û serweriya welatê xwe jî negirtin. Mînaka herî berçav ya wan cure tevgeriyan û helwestane azadkirina bikujên Dr. Qasimlo ji aliyê dewleta Otrîşê ve bû.

Gava wêrek û netirsane ya dezgeha Dadê ya Arjantînê ji bo derkirina biryara girtin û binçavkirina berpirsiyarên rejîmê her çiqas piştî derbasbûna 12 salan li ser vê bûyera hov û nemirovane de derket rojevê, lê peyameke ron û aşkere ji bo rejîma terorîstperwer ya Komara Îslamî a Îranê ye ku niha pêde ne tenê destê wan ji bo terora li dijî neyarên siyasî yên xwe ne vekirî ye, belkî divêt li hember wan bûyer û cinayetane jî ku berê ji aliyê kirêgirtiyên wan ve birêve çûne, bersivder bin.

PDK Îranê ku bi sedan Kadro, Pêşmerge, endam û alîgir û li serveyî tevaya du Sekreterên wê, yanî **Dr. Ebdulrehman Qasimlo** û **Dr. Sadiq Şerefekendî** ji aliyê rejîmê ve hatine terorkirin, piştgirî û piştevaniyê ji hikm û biryara girtin û binçavkirina "Refsencanî" û 8 kesên din ku ji aliyê Dadwerê Dadgeha Federal ya Arjantînê ve, bi sedema dest têde hebûn di teqandina Navenda Çandî ya Cihûyan li "Buenos Aires"ê hatiye dayîn, dike, nemaze ku çend kes ji wan 8 kesane her ew in yên ku di dadgeha Berlînê de jî hatine mehkûmkirin.

Em hêvîdar in welatên Ewropayî jî şûn piyê dezgeha dadê ya Arjantînê bigirne ber xwe û biryara wan terorên ku ji aliyê Komara Îslamî ya Îranê ve di welatên wan de birêve çûne, careke din bixin ber lêkolînan û heq û edaletê di derbarê wan de birêve bibin.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**12.11.2006**
**21.08.1385**

# Heştemîn Civîna Giştî Ya Rêxistina Qewim Û Neteweyên Bê Nûner (UNPO) Li Bajarê Taypê De

Rêxistina Qewim û Neteweyên bê Nûner(UNPO), heştemîn civîna xwe ya giştî ku 18 mehan carekê tê lidarxistin, roja 27 – 29.10.2006'an li bajarê Taypê ya Paytexta Taywanê de lidarxist.

Di civîna han de li her 5 parzemînên cîhanê, nûnerên nêzîkî 50 qewim û neteweyên bê nûner yên endamê NY'ê û nûnerê 3 neteweyên din weke çavdêr beşdar bûn. Wê rêxistinê 66 endam hene.

Bi axavtina birêz Marîno Budasxîn, Sekreterê Giştî, Goran Hênson, Berpirsê Civata Giştî ya "UNPO"ê, Dr. Parîs Çang, Cîgirê Parlemanê û ji berpirsên Wezareta Karê Derve ya Taywanê, birêz Ken Martîn Maher, Wezîrê Dadê yê welatê Estonîyê (endamê berê yê "UNPO"yê), birêz Hans Wan Baln, nûnerê Parlemana Holanda û hin peyam ji aliyê birêz Lord Nezîr Ehmed, endamê Parlemana Îniglîstanê, Ezlodî Gerî, nûnerê olî yê Tebet yê Dalî Lama û ..., ser sibêdeya roja înê, civîn dest pê bû û piştre govendên herêma girava Fermoza(Ami and Puyuma), birêve çûn.

Piştî nîvroya roja înê û li pey pêşkêşkirina rapora salane, panelek ji bo şareza û pisporên qanûnên navneteweyî li ser kar û barên neteweyên bindest û ne desthilatdar di welatên cur bi cur ên cîhanê de, rewşa cîhanê û mafê mirovan di wan welatan de ku xelk li bin desthilatdariya sitema hikûmetên navendî de û bi awayekî ne hakim dijîn, şiroveya wate û meneya diyarîkirina çarenivîsa neteweyan ji aliyê NY'ê ve û guhertinên ku di vê derheqê de di astên navneteweyî de pêk hatine, nemaze piştî 11'ê Septemberê, birêve çû û hin bas û babetên hêja tê de hatin pêşkêşkirin.

Ji neteweyên bindest yên Îranê jî ku endamê rêxistina han in, neteweyên Belûç û Erebên Ehwazê her yekê 2 nûner û ji gelê Kurd jî nûnerek di civînê de beşdar bûn.

Nûnerên Erebên Ehwazê, birêz Yasîn - El- Ehwazî û Dr. Benî Seîd, nûnerên neteweya Belûç, birêz Ebdulah Belûç û Ehmed û nûnerê gelê Kurd jî Dr. Mîro Eliyar, nûnerê PDK Îranê, weke endamên çavdêr beşdarî civînê bûn.

Baseke din a panelê basek bû li ser nasname, demokrasî û pêwendiyên wan tevî ewlehî û aramiyê ku bi beşdariya nûnerên neteweyên endam ên rêxistinê bi hûrî li ser hate gengeşe û nîqaşkirin û hin pêşniyar jî pêşkêş bûn.

Rojên paştir bi beşdariya nûnerên rêxistinên navneteweyî û balyozê hin welatan li patytexta Taywanê de, rewşa siyasî, civakî, çandî, mafê mirovan û jiyana neteweyên endam bi dayîna demeke wekhev ji hemû neteweyan re, bi başî ji beşdaran re hate şirovekirin. Birêz Ebdulah Belûç û Dr. Kerîm Benî Seîd, di vê derheqê de li ser rewşa neteweyên Belûç, Ereb, netewe û qewmên ne desthilatdar ên din, kêmaniyên olî, neteweyî û zimanî yên akinciyên Îranê, zaniyariyên berfireh û bisûd pêşkêş kirin.

Roja yekşem 29.10.2006'an, biryarnameyên pêşniyarkirî ji aliyê nûnerên neteweyên endam ên rêxistinê pêşkêşî civînê bûn û ketin ber dengdanê.

Piraniya şandên nûneran ji bo




rakişandina piştevaniya rêxistinên navneteweyî bo aliyê xebata xwe, biryarname pêşkêş kirin. Neteweyên bindest ên Îranê jî 2 biryarname ji aliyê gelên Belûç û Ereb û biryarnameyeke hevpar bi piştevaniya Kongireya Neteweyên Îrana Federal, ji aliyê Ereb û Belûçan ve hate pêşniyar kirin û kete ber dengdanê. Her wiha Civîna Giştî ya Kongireyê dem da birêz Dr. Mîro Eliyar, nûnerê PDK Îranê ku derbarê xebata gelê Kurd li Îranê de û dîroka xebata PDK Îranê, raporekê pêşkêşî civînê bike. Birêz Eliyar jî, raporeke dewlemend û berfireh ji dîroka zêdetir ji 50 salan xebata gelê bindest ê Kurd li dijî hikûmeta navendî ya Tehranê, pêşkêş kir.

Hemû biryarnameyên pêşkêşkirî bi piraniya dengan hatin pejirandin. Rûnivîsa eslî ya biryarnameyan bi zimanê Îngilîzî li ser malpera "UNPO" yê bi nav û nîşana **www.unpo.org** mêze bikin.

Di dawiya raporê de kurtiyek ji biryarnameya gelê Ereb ê Ehwazê û her wiha biryarnameya hevpar a pejirandiya Civata Giştî, dê were weşandin.

Madeya dawiyê ya destûra kar roja yekşem, 29.10.2006'an, hilbijartina berpirs û cîgirê civatê(aliyê kêm ji bo yek sal û nîvan) û her wiha hilbijartina Heyet(desteya) Birêveber yan Şewra Navendî ya 9 kesî ya berpirsê rêxistin (Council Persidency)ê bû.

Civata Giştî, birêz Lêdom Mîtî, ji neteweya "Ogani" li welatê Nîceriyê weke berpirs û xatûna Mî Sîng Yang, li Taywanê bi piraniya dengan weke Cîgira Berpirsê "UNPO"yê hilbijart. Her du kesên han dê endamên Şewra Navendî jî bin.

Endamên din ên Şêwra Navendî ya Rêxistina Qewim û Neteweyên bê Nûner ku bi piraniya dengan hatin hilbijartin, bi awayê jêr de hatî hatine zanîn:

- Biêrz Maksîm Gîncî, nûner û cîgirê Wezîrê Karê Derve yê Komara Otonom ya Abxazistanê.
- Birêz Ronaldo Marîko, bi nûneriya neteweyên parzemîna Amerîkayê.
- Dr. Benî Seîd, ji Rêxistina Mafê Mirovan ya Ehwazê û neteweya Ereb di Îranê de.
- Birêz Nigwan Çoçil, ji gelê Tebet di Çînê de.
- Birêz Dolkan Îsa, ji neteweya Yeqor (Yêgor)li Turkemenistana Roajva di Çînê de.
- Birêz Şerîf Hemd, ji neteweya Zengbar ya Afrîqayê.
- Birêz Goran Hansên, ji neteweya Îskanî li welatên Îskandînavyayê.

# Serkevtina Konferansa Giştî Ya Komîteya Birêveber Ya YCDK Îranê Li Fînlandê

Duyemîn Konferansa giştî ya Yekîtiya Ciwanên Demokrat ya Kurdistana Îranê li welatê Fînlandê, roja yekşem, 12.11.2006'an, hember 21'ê Xezelwera 2706'an ya Kurdî hate lidarxistin. Konferans bi beşdariya 83 endamên YCDK Îranê li Fînlandê û hejmarek ji endamên Komîteya PDK Îranê li Fînlandê û Berpirsiyarê Giştî yê Nûnerayetiya YCDK Îranê li derveyî welat, **Rehîm Reşîdî**, li bajarê Amprê li navenda welatên Fînlandayê birêve çû.



Deqa rapora û daxuyaniya Çapemeniyê ya **Komîteya Birêveber ya Yekîtiya Ciwanên Demokrat ya Kurdistana Îranê li Fînlandê** di malpera me ya jêr de bixwînin:

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php**

# Daxuyaniya Nerazîbûnê Ya Komek Ji Nivîskar, Xwndekar Û Çalakên Çandî Û Sivîl Lidor Mehkûmkirina Girtin Û Bendkiriyên Vê Dawiyê De

Ewa ku di cîhana îro de buha û girîngiyeke zaf heye û mixabin bêtir ji her tiştek e din êrîş, bêhurmetî û destdirêjî bi ser de hatiye kirin, kerameta mirovan û azadiyên wan di derikandin û geşandina bîr û ramanên xwe de ye. Mirov dikare girîngiya vê mijarê di olên asîmanî û Îslamî de jî bibîne ku Xwedê peyama xwe ji bo vexwendina mirovan bi **xwendinê** dest pê kiriye û her wiha bi **pênûs** ku sembol û hêmaya nivîsîn û guhertina bîr û hizra ye, sond xwariye.

Girîngiya azadiya raderbirînê di Danezaîna Gerdonî ya Mafê Mirovan de ku ji aliyê piraniya hikûmetên cîhanê û nemaze welatê Îranê jî hatiye pejirandin, bi vî awayî hatiye diyarîkirin:

**Bend 19**: "Mafê her mirovî heye ku fikr û ramana xwe bi awayekî azad eşkere bike. Ew maf ew e ku divêt kes ji ber ramanên xwe nehê êşandin û bêy ku tixûbên welêt bibin asteng, her kes bikare ji her cure alav û amûran li zaniyarî û bîr û ramanan bigere, bi dest bixe û belav bike"

Nivîskar û rojnamevan wekî alîgir û belavkerên bîr û ramanan, xwediyê keramet û cihwareke taybet in û her cure berlêgirtin û bêparkirina wan ji mafê azadiyan, ziyan û xesareke mezin digehîne qedr û warê bilind yê raman û kerameta mirovahiyê.

Mixabin vê dawiyê piroseyeke kirêt û biyom li Kurdistana Îranê serî hildaye ku di encama wê de ewlehî û azadiya mivîskar, rojnamevan û çalakên warê çandî, sivîl û siyasî ketiye ber tirsê û girtin û binçavkirina wan yê bûye sedema nigeraniya tev tex û qatên civakê.

Lewre em weke komek ji nivîskar, xwendekar, xebatkar û çelengên warê çandî û sivîl ku li gor benda 24'an ya Qanûna Bingehîn ya Komara Îslamî a Îranê ku li ser mafê derbirîna azad ya bîr û ramanên xwe dixwazin bilez hemû girtiyên warê kulturî, sivîl û rojnamevan serbest werin berdan, nemaze rêveberên duheftînamaya "Kurdî/Farsî" ya "Rojhelat"ê, birêzan: Riza Elîpûr, Ferhad Emînpûr û Saman Silêmanî.

**Têdîtin:**

**Navê her 107 kesên ku ev daxuyaniye îmza kirine, di malpera "Kurdistanmedia"yê de hatiye belavkirin.**

# Meşa Dîrokî Ya Kurdan Ji Bo Xorasan, Li Rojhilata Îranê

Di zimanê Kurdî de navê Kurd wateya netirs, şervan û dilêrbûnê dide. Piştî dagirkirina Bakûrê Rojhilata Navîn ji aliyê Îslamê ve di sedsala heftan ya Zayînî de, heya niha navê Kurdan ji bo nasandina xelkê Rojavaya Îranê di çiyayên Zagrosê de tê bikaranîn.

Di destpêka sedsala şanzdan de, Împeratoriya Îranê (Sefewiyên Şîe meseb) li hember Împeratoriya Osmanî (Sunî meseb) wek rikeber derket holê û Kurdan di çarçoveya desthilata li jêr deiya Împeratoriya Osmanî û Sefewiyan de serî hildan. Her du Împeratorî di sala 1514'an ya Zayînî de li deşta Çaldiranê bi hev re şer kirin ku di wî şerî de Împeratoriya Sefewiyan rastî têkçûnê hat û encama vî şerî pêkhatina sînoran û parvebûna Kurdistanê di navbera van du Împeratoran de bû.

Meşa eşîrên Kurd ji bo Xorasanê di dema desthilatdariya Sefewiyan de, li derdora sala 1590'an ya Zayînî de dest pê kir ku sebeba wê di rastî de tenê siyasî bû. Merem ji şandina Kurdan bo Xorasanê eva bû ku Kurd vê herêmê li hember êrîşa Ozbek û Muxulan biparêzin. Kurd weke mirovên egîd û welatparêz hatibûn naskirin û paşdebirina şervan û dagirkeran li ser axa xwe ji wan re ne kareke dijwar bû. Bi vî awayî encama siyaseta Şahê Sefewiyan ji rêya mifahwergirtin ji Kurdan ji bo parastina serxwebûna welat kemilî.

Niha bi qasê 2 milyon kes Kurd di Xorasanê de ku dikeve Bakûra Rojhilatê Îranê akincî ne û dijîn. Piraniya wan jî wekî ew kesên ku hatine bidûrxistin ji axa bav û kalên xwe yanî Kurdistana mezin hatine ji bîr kirin. Û hewce bi gotinê nake ku nebûna îmkanatên dewletî û bûna xizanî û desttengî û pêşneketinê di vê deverê de bi



eşkere tê dîtin.

Li wir tu dezgehên siyasî yên Kurdî ku hatibe organîzekirin yan navendên perwerdehiyê ji bo çêtirkirin û nûjenkirina çand û zimanê Kurdî û pirsên civakî ku bingeha mafên sivîl e, tune ye. Navlêkirina Kurdî ji bo zarokên ku taze ji dayîk dibin, bi giştî qedexe ye û divêt naveke îslamî di nava pirtûka navan ku li pêşde di Îdareya "Sebt û Ehwal" de hatiye hazirkirin, hilbijêrin. Temaşakirina kanalên Kurdî û televîzyonê din yên esmanî ne tenê bi giştî qedexe ye, belku helîkopterên rejîmê li pey sêlên setelaytan digerin û heke sêlên setelaytê ji aliyê "Sipaha Pasdaran" û Hêzên sîxor û ewlekariya rejîmê were dîtin, dê dest biser da bê girtin û xwediyê wan bi lêdana şelaq û cirîma hazirî dê werin sizadan. Her wiha rojnamevan û weblagnivîsên Kurd hertim li jêr zêrevaniya rasterast û ne rasterast ya dezgehên dewletî de ne. Leheng û nivîskarên Kurd yan tên binçavkirin yan ketine ber bêrêzî û bêhurmetîkirinê. Bo mînak, Dr. Kelîmulah Tewehûdî, nivîskarê Kurd û hejmareke din hatine girtin û di girtîxaneyê de ne.

Piraniya Kurdên akincî yên bajarên Xorasanê bi zaravê Kurmancî yek ji zaraveyên fermî yên zimanê Kurdî diaxivin. Ew bajarên Xorasanê ku Kurd têde akincî ne û temenê wan bi 420 salan berî niha divegere, navhatî ne ji: Qoçan, Bicnûrd, Esferayn, Şîrwan, Çinaran, "Derê Gez"(Geliyê Gez), Kelat, Aşxane, Faroc, Bacgîran, Mane û Similqan û her wiha hejmareke zaf ji Kurdan li bajarê Meşhedê de ku paytexta Xorasanê ye, dijîn.

Piraniya Kurdên akincî yên Xorasanê di gundan de dijîn ku eva yê bûye sebebê parastina çanda Kurdî û zimanê Kurdî û bêy wê çandê ku were Asimîlekirin, weke xwe paqij û bê desttêwerdan bi cih maye. Qoçan Bajareke Kurdakincî û bi rûberê 533 - 849 kîlometran ku li parêzgeha Xorasanê hilketî ye û ji Bakûrê tevî Geliyê Gez û ji Başûrê ve tevî bajarê Nêyşabûr û Esferaynê û ji Rojavayê ve tevî bajarê Şîrwan û ji Rojhilatê ve tevî bajarê Meşhedê hevsînor e. Qoçan herwisa tevî welatê Turkemenistanê hevsînor e (Di welatê Turkemensitanê de jî pitir ji 400 hezar Kurd dijîn). Qoçan ji aliyê Bakûr ve tevî vî welatê bi qasê 75 kîlometran tixûbê hevbeş heye. Bicnûrd dikeve Bakûra Xorasanê û rûberê bajarê Bicnûrdê bi qasê 935 - 114 kîlometra çargoşe ye. Herwiha rêya fermî ji bo pêwendiyan tevî parêzgehên Bakûr yên Îranê bûye û ji bakûrê ve tevî welatê Turkemenistanê cîran e û bi qasê 97 - 1 kîlometran tevî vî welatî hevsînor e. Herwisa ji aliyê Rojhilatê ve tevî bajarê Sîrwan û ji aliyê Rojavayê ve tevî parêzgeha Golistan û ji bakûr ve tevî bajarên Esferayn û Girme û Cacrom ve hevsînor e. Li gor destkeftên kevnarnasan û herwisa send û belgeyên dîrokî, temenê vî bajarî divegere bo 5000 salan berî niha.

**Nivîskar: Behrûz**
**Werger ji Îngilîzî bo Farsî: Agirî**
**Werger ji Farsî bo Kurmancî: Hemîd Muxtarî**

# Pêşbirkêya Li Dor Hebûna Bernameya Etomî Di Rojhilata Navîn De



Li gor raporekê ku rojnameya "Times", çapa Londonê weşandiye, niha pêşbirkê li dor hebûna bernameya Etomî di holê de ye. Li gorî wê raporê, encama projeyên etomî yên Îranê yê bûye sdedema ku 6 welatên Erebî jî hez dikin ku bernameya Etomî bidests bixin. Ew dibêjin ku armanca wan mifahwergirtina ne leşkerî ji vejena navikî û hevahengî tevî zagonên navneteweyî ye.

Ev şeş welat pêkhatîne ji : Elcezayir, Merakiş, Erebistana Seûdî, Tûnis û Mîrîtiyên Erebî yên Yekbûyî.

"Tanî Guçî", Cîgirê Ajansa Vejena Etomî ya Navneteweyî di hevpeyvînekê de bi kovara aborî ya "Middle East Economic Digest"ê re dabû zanîn ku hin ji welatên Rojhilata Navîn weke: Misr, Merakiş, Elcezayir û Erebistanê ragihandine ku dixwazin ji Vejena Navikî bimifah bin. Tanî Guçî zêde dike û dibêje ku Ajansa Navneteweyî a Vejena Navikî niha mijûlê gotûbêjan li ser wan welatane ye û amade ye alîkariya teknîkî bi wan re bike. Li gor wan zaniyariyên ku rojnameya "Times" ê bidest xistine, welatên Tûnis û Mîrîtiyên Erbeî yên Yekbûyî jî di nava wan welatan de ne.

Enistîtuya bi nav û deng ya Lêkolînên Stratejîk li Londonê (IISS) eleqe û hezkiirna van welatan ji bo bidestxistina Vejena navikî ji ber encama xebat û projeyên Etomî yên Îranê dizane. "Mark Fîtîz Partîk" karnasê Enirtîtuya Stratejîk(IISS) di warê xurtbûna navendên etomî, bi nûçegihanê rojnameya "Times"ê re got ku welatên Erebî dixwazin ji bo pêkanîn û xurtkirina hisara ewlehî û tenahiya xwe, vejena Etomî bidest bixin. Wî karnasî zêde kiribû ku ger Îran di cehda bidestxistine çekên etomî de nebiba, niha xebat û bizava han di nava welatên Erebî de jî di holê de nedibû.

Heya niha di Rojhilata Navîn de tenê Îsraîl xwdiyê çeka Etomî ye, her çend ku Îsraîlê tu car ev mijare erê nekiriye.

Misr û welatên din yên Aferîqaya Bakûr yanî: Elcezayir, Merakiş û Tûnis dikarin vê yekê bînin ziman ku bi sedema geşekirina aborî û nifûsa xwe û herweha jêhelçûna buhaya niftê, dixwazin vejena kêmbuha û erzan bidest bixin. Lê Erebistana Seûdî ku xwediyê çavkaniyên mezin yên petrolê ye, nikare ji vê fakterê mifahê bistîne.

# Gerek Kurt Di Dîrokê De ...

**Amadekar: Nûredîn Sofîzade**

**01.11.1986:** Pêşmergeyeke xweşmêr yê PDK Îranê ji Hêza Kêleşînê bi navê **Qadir Mîrzayî** li şerê Geliyê Az ya devera Dola Deştebêlê tevî hêzên Komara Îslamî şehîd bû.

**01.11.1993:** Xatûna Daniyel Mîtran, hevjîna Franso Mîtran, Serkomarê wî çaxî yê Fransayê û dosta netewa Kurd, bona bas li ser pirsa Kurdan û çespandina mafê Kurdan li Kurdistana Îraqê û ji bo berlêgirtin ji destêverdana rejîmên cîran û parastina wê para Kurdistanê, çû Niyoyorkê û tevî Sekreterê wî çaxî yê Rêxistina Neteweyên Yekgirtî, Petros Xelîl hevdîtin û nîqaş kir.

**02.11.1986:** Helbestvanê Kurd "Nasih Heyderî" koça dawiyê kir, wî di warê zimanvaniyê de jî gelek xizmetên mezin kiribûn.

**03.11.1957:** Yekîtiya Soviyetê yekemîn gemiya esmanî ya xwe ku hilgirê rihberekê bû (ku ew jî seyek bû) hinarte esman.

**03.11.1986:** Rojnameyeke Lubnanî eşkere kir ku şîrketeke Amerîkî bi dizî ve çek û teqemeniyan difiroşe Îranê ku piştî hingê bi "Îran Kontra" hate naskirin.

**03.11.1996:** Kemal Ehmed, Sekreterê Partiya Kurd li Kurdistana Rojava bi sedema qezaya tirafîkê jiyana xwe ji dest da.

**04.11.1979:** Piştî hatine serkar a Komara Îslamî li Îranê de, Xumeynî Balyozxaneya Amerîka wek hêlûna casosî hesiband sîxor û xwendekarên peyrewê xetê Îmam dest bi ser balyozxanê de girtin û heyama 444 rojan tev karmendên wê bi rehîn girtin.

**04.11.1980:** Hêzên rejîma Komara Îslamî di dirêjiya cinayetên xwe li Kurdistanê de, 53 kes ji xelkê bêberevan ên du gundên Îndirqaş û Visûkend li devera Mehabadê bi terzeke hovane bi ser hev şehîd kirin.

**05.11.1999:** Nûredîn Kiyanûrî yek ji siyasetvanên navdar yê Îranê û ji rêberên Partiya "Tûde" (Komonîst) li temenê 84 saliyê de koça dawiyê kir.

**06.11.1979:** Piştî serkevtina şoreşa neteweyên Îranê ku dewleta demkî bi serokatiya "Mehdî Bazirgan", hatibû avakirin ew dewlet hate hilweşandin.

**06.11.1983:** Pêşmergeyên PDK Îranê ji hêzên Hejar û Muînî li ser Padigana "Nore" nêzîkî 150 kes ji hêzên rejîmê kuştin û agir berdane Cebirxana Padiganê û dijmin bi xurtî rastî têkçûnê anîn. Di wê himasê de 5 Pêşmerge bi van navên jêr şehîd bûn: 1. Xelîl Muradî 2. Tofiq Merûfî 3. Resûl Şerîfzade 4. Celîl Himetî 5. Yarehmed Cedî.

**08.11.1962:** Helbestvanê mezin ê Kurd, mamosta **Goran** koça dawiyê kir.

**09.11.1981:** Hêzên dijî gelî yên Komara Îslamî di doma kiryarên xwe yên cinayetkarane de, 9 kes ji xelkê sivîl yê gundê Bayzara li devera Nexedê şehîd kirin.

**09.11.1983:** Li gundê "Kanîçermik"ê, 7 Pêşmergeyên PDK Îranê ji Hêza **Şerêfzade** ketine nava hisara dujmin de û piştî mêrxasî û berxwedaniyeke zaf, her 7 Pêşmerge şehîd bûn ku navê wan ev in: 1. Osman Dadxwah, Fermandê Hêza Şerîfzade 2. Emîr Ebdî, Cihgirê Fermanderê Hêzê 3. Simaîl Nasirî 4. Salih Tehmasibî 5. Seyîdxalid Huseynî 6. Ostad Salih Nasirî 7. Mihemed Rehîmî.

**09.11.1989:** Hilgirtina dîwarê Berlînê û têkelbûna Almaniya Rojhilat û Rojava.

**09.11.1994:** Binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê li Koyê ji aliyê 6 balafirên şerker yên Komara Îslamî ve bi tundî ketin ber êrîşa bombe û raketan.

**10.11.2005:** Pêkhatina Kongireya Neteweyî ya Kurd li jêr navê **"serbixweyiya Kurd, demokrasî û tenahî li deverê de"**, Rêzdar Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê têde pişikdarî kir û gotarek girîng û balkêş pêşkêş kir.

**11.11.2004:** Rêberê xebata azadîxwazane û Serokê desthilata Felestînê **Yasir Erefat** di temenê 75 saliyê de koça dawiyê kir.

**12.11.1949:** Damezirandina "cibhe" (Eniya) Milî bi rêberiya Dr. Mihemed Musediq.

**13.11.1948:** "Yunis Reuf" naskirî bi (Dildar), welatparêz û helbestvanê navdar yê Kurd koça dawiyê kir, berhema herî girîng û zindî ya navhatî helbesta **"Ey Reqîb"** e ku niha yê bûye sirûda neteweyî ya Kurdan.

**13.11.1993:** "Şahrox Muradî" Fermanderê Hêza Şerîfzade tevî 4 Pêşmegeyên din bi navên: 1. Enwer Îbrahîmî 2. Selah Muradî 3. Tahir Menûçêhrî 4. Reşîd Rostemî, bi sedema teqîna mayîna çandî ya kirêgirtiyên Komara Îslamî di nava ava Kurdistana Başûr, şehîd bûn.

**15.11.1939:** Resayetiyê mezin ê Kurd, Şêx Omerê Ziyaedîn Naxşbendî koça dawiyê kir.

# Binpêkirina Mafên Mirovan Û Xurtkirina Cehda Tepeserkarane ya Van Çend Mehên Borî Ji Aliyê Hêzên Rejîmê Ve Li Bajarên Makû, Xoy, Çaldiran Û Poldeştê

**Navenda Nûçeyan a Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê:**

- Di van mehên dawîn de hêzên leşkerî yên "Sipah"ê ser bi girûpek ji "Qerargeha Hemze" ya Urmiyê û "Aşûra" ya Parêzgeha Erdebîlê di çend cihên deverê de bi taybet di binkeyên hêzên Întizamî û rêyên navbera gundên bajarên Makû, Xoy û derdora wê de cihgir bûne. Di gundên derdora herêma Boralan a Makûyê de li çend hefteyên bihorî de, tund û tûjî, givaş û hat û çûna hêzên ewlekarî û ajanên rejîmê zêdetir bûye, bi terzekê ku êrîşê dibne ser gundiyan û bi hêcetên cur bi cur mal û milkên wan wêran dikin û bi girtin, teqe, lêdan û birîndarkirina çend kesan, revandin û destbiserkirina bê sedem a xelkê herêmê, jiyan ji gundiyan tal kirine.

- Rejîmê di meha borî de hejmareke zaf ji ciwan û xwendekarên Kurd bi buxtanên bê wate û tenê ji ber hebûna sêlik (CD), stiranên Kurdî, pirtûk, kovar û belavokên Kurdî yan pêwendiyên telefonî tevî televîziyon û radyoyên Kurdî hatine girtin û hepsîkirin.

- Hejmareke berbiçav ji wan bi sedema hilgirtina alavên deng û reng yên Kurdî, yan bi sedema hilgirtina wêneyên rêberên Kurd û stiranbêjên Kurd, yan bikaranîna zimanê Kurdî û mifahwergirtin ji înternetê û peydakirina faylên înternetî di kumpyoterên wan dikevine ber îşkence û tên hepsîkirin.

Bo mînak girtina xwendekareke Kurd bi navê Azerî ku rûniştiyê Bazirganê ye û gunehbarkirina mamostayek Kurd bi navê Îbrahîm Aşiqî bi guneha pêwendiyên înternetî û peydakirina faylên înternetî di kumpyoterên wan de bi 1 sal hepsê hatiye mehkûmkirin û her wiha hevjîna wî jî bi guneha alîkarî û hevdestî bi mêrê xwe re hatiye girtin. Piraniya wan girtiyên ku sûça wan siviktire, bi hukmê 3 meh û rojekê hetanî 4 salan zîndanê li dadgeha "Înqilab" a Xoyê de hatiye mehkûmkirin.


Hejmarek ji ciwan û xwendekarên Kurd ji ber çalakiyên siyasî û çandî li bajarên Makû û Xoyê hatine darizandin

Çend kesên din jî bi guneha han weke Yûsif Ahen xweş bi îdamê hatiye mahkûmkirin û çarenivîsa wan nediyar e.

Hêjayî gotinê ye ku bi biryara Dadwer "Yeqûbî" û lêpirsîner Husênêazer (Dadwer û lêpirsîner dadgeha giştî û "Înqilab" a Makûyê) li pejirandina danana kefîl û zaminan ji bo azadiya girtiyên sûçdar bi guneha siyasî yên îşare pêkirî, xwe diparêze.

Sûçdarên îşare pêkirî bi terzeke ne yasayî ku hêj buxtan û gunehên sepandî ji wan re ji aliyê dagehê ve nehatine erêkirin û hukmê zîndanê li ser wan de ne hatiye dayîn, di girtîgehê de dê bimînin bi awayekê ku girtîgeha Makûyê ji ciwanên Kurd tejî bûye.

-Dema çêrîna malatên parek ji pezdarên koçer yên Kurd ji wan hatiye standin. Bo mînak Elî Çîlan û Ebdula Omerpûr, xelkê gundê "Zelke" li derdora Makûyê de îcazeya wê jê hatiye standin.

- Pêkanîna tirs û xofê di nava xwendekarên Kurd di xwendingehan de bi rêya hêcetên cur bi cur weke kêmkirina nimreyên dersê û teqîb û gazîkirina malbatên wan, tenê bi sûça Kurdbûna wan.

Ciwanek bi navê Mihemed Mîrzayî kurê Yûsif, xelkê gundê "Qereqoyun" a ser bi bajarê Makûyê çend mehan berî niha ji aliyê hêzên ewlekarî yên rejîmê ve li Urmiyê hatiye girtin. Heyamekê berî niha di girtîgeha Urmiyê de bûye û malbata wî bo seredana wî çûne Urmiyê, lê berpirsên girtîgehê gotine wan ku navhatîne di vê girtîgehê de ye. Melbata navhatî serî li hemû navend û dem û dezgehên dadê yên Urmiyê dane, lê tu agehiyek ji navhatî bi dest nexistine. Li gor deng û basan, hêzên ewlekarî yên rejîmê ev ciwane bi guneha alîkarî bi hêzên Kurdistanî re kuştine û cenazeyê wî jî veşartine.

Herwiha kesek bi navê Resûl Asa, xelkê gundê Elî Hacoboralan bi guneha alîkarî û pişikdarî li kuştina hêzên rejîmê di çend rojên borî de ji aliyê Sipaha Pasdaran hatiye girtin û çarenivîsa wî nexuya ye.

# Ji Bo Jinên Ku Lixwekirinê Naparêzin



Li gor daxuyaniyekê ku di roja sêşem, 07.11.2006'an ji aliyê hêzên Întizamî yên rejîmê li bajarê Bukanê ve hatiye belavkirin, ew jinên ku bi bê lixwekirina olî di cihên giştî de li pêş çawên xelkê xwe dixemilînin, bi 2 meh cezayê girtîxaneyê û 5 heta 50 hezar tûmen dê bihên mehkûmkirin û herwiha her kesek ku bi terzeke eşkere li ber çawên xelkê û di cihên gişt de kiryarên heram birêve bibin, serbarê vê çendê, cezaya 74 derbe şelaqan dê ji vê bihê diyarî kirin.

Rejîma Komara Îslamî bi sepandina ji xwekirina neçarî herwek eva ku talîbanê berê di Efxanistanê de birêve dibir, dixwaze jinên Îranê di kuncê malan de heps bike û bi vî awayî van ji her cure azadiyekê nemaze azadiya cil û bergan jî bêpar bike.

# Xwekuştina 2 Keçan Di Kurdistanê

Hefteya borî keçeke 17 salî ya Mehabadê bi navê **Lîmo N**, bi sedemên ne eşkere xwe şewitandiye. Rijdî û qasê şewitînê û zirarên li ser cendekên Lîmoyê gelek xurt hatiye ragihandin, lê ew ji mirinê rizgar bûye. Her çend ku sedema xwe şewitandina vê keça ciwan hetanî niha jî nehatiye eşkerekirin. Lê tê gotin di helwesta hember zextên malbatê de bûye.

Herwiha roja çarşem, 10.08.1385(01.11.2006)'an, li yek ji taxên bajarê Banê de, keçeke 17 salî bi navê **Eşret A**, keça Hesen, xwe şewitand. Xebat û hewlên nojdaran nekarîn tu karekê ji bo rizgarbûna vê keça ciwan bikin. Mixabin giraniya qasê şewitînê bû sedema mirina Eşretê. Hegera xweşewitandinê ne eşkere ye, lê tê gotin ku bi sedema zextên malbatî bûye.

**Çavkanî: Nûçegihanên "RMMK"ê**

# Di Rojê De 40 Kes Ji Xelkê Îranê Tûşî Îdzê Dibin

Birêveberê bernameya hevpar ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî di warê Îdzê de, got ku di rojê de 40 kes di Îranê de tûşî nexweşiya Îdzê (HIV) dibin.

Dr. Hemîdriza Sitayiş,tevî gotina vî nûçeyî di civîna hevbeş ya Ajansa Rêxistina Neteweyên Yekbûyî yên di Îranê de anî ziman ku di 2 salên borî de nexweşiya Îdzê di Îranê de 2 hember geşe kiriye.




Herwiha wî got ku niha hejmara kesên tûşbûyî bi Îdzê di Îranê de 60 hetanî 70 hezar kesan e, lê tê xuyakirin serbarê vê qasê lezgîn û zaf a tûşbûnê bi Îdzê di Îranê de, hejmara tûşbûyiyên Îdzê bigihîje 140000 kesan.

**Jêder: "akhbar-rooz"**

# Mirina Salane Ya 70 Hezar Jinan Di Cîhanê De Bi Sedema Liberxwe Birina Zarokan Bi Awayê Ne Usûlî

Pisporên tendurustiyê ragihandin ku di salê de 70 hezar kes di cîhanê û bi taybet di welatên xizan û belengaz de, bi sedema liberxwe birina zarokan bi awyê ne usûlî jiyana xwe ji dest didin û hejmarek zaf tûşî xisarên mezin dibin.



Li gor nûçevaniya Feransayê ji kovara lampur: "Dûrrûtî Şav" serokê hilbijartî yê Federasiyona Navneteweyî ya nexweşxaneyên Jinan û Zayînê got: Liberxwebirina neusûlî ya zarokan pirsgirêkeke micid ya saxlemiya jinan e ku de salê de dibe sedema mirina 13 ji sedê ya dayîkên cîhanê. Şav bi eyankirina vê çendê ku liberxwebirina zarokan ya nesaxlemî bi sedema belengazî, newekheviyên civakî û bêparbûna jinan ji mafên xwe yên sereke ye got: "Di hemû cihên cîhanê jinên ku aboriya wan xurt e, dikarin bê pirsgirêk zarokên xwe liberxwe bibin, lê jinên ku xizan in û aboriya wan ne xurt e, pêvajoya bêxeter ya vî karî dûr ji karîn û şiyana xwe dibînin".

Rêxistina Cîhanî ya Tendurustiyê di nirxandina xwe ya sala 2003'an de, diyar kir ku 95 ji sedê ya liberxwebirina zarokan ya ne saxlemî di welatên jar û belengaz de tên encamdan ku hejmara herî zêde yan wan di başûr û navenda Asiyayê de tê xuyakirin.

**Çavkanî: "IRNA"**

# Bûkên Kêm Temen Li Afrîqayê



Zewaca neçarî ya keçên kêmtemen naskirî bi **bûkên kêmtemen** yê bûye bi diyardeyeke berfireh di welatên belengaz yên Afrîqayê.

Li gor rapora CNN'ê û rapora Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, bandorên herî girîng yên nerênî ên zewacan keçên kêmtemen tevî mêrên temenjor, zêdebûna egera mirina dayîkên kêmtemen di dema zarokbûnê de ye.

Hêjayê gotinê ye ku di welatê Nîcerê de, 82 ji sedê ya keçên vî welatê ku temenê wan jêr 18 saliyê ye, bi zorî bi mêrên temenjor tên zewicandin û herwiha li herêma Amhara di welatê Etyopiyê de, 39 ji sedê ya keçan çarenivîseke wiha hene.

Piraniya keçên kêmtemen pêş zewacê hevjînê xwe yê pêşerojê nabînin û berevajî hevtemenên xwe, ji xwendinê tên bêparkirin.

Hejmara bûkên kêmtemen ber bi zêdebûnê diçe û pêşdîtin tê kirin ku hetanî 10 salên din hejmara bûkên kêmtemen bigihîje 100 milyon kesan. Serhejmarî didin xuyakirin ku niha 15 milyon bûkên kêmtemen di cîhanê de hene.

**Jêder: "irwomen"**

# Îşkenceya Zayendî Ya Jinan Di Girtîgehên Turkiyê De



Di heyamên salên 1997'an hetanî Oktobera 2006'an de, 236 jin ku piraniya wan jinbên Kurd û jinên siyasî bûn, di girtîgehên Turkiyê de ketine ber şopa îşkenceya zayendî. Li gor raporekê ku di demeke nû de ji aliyê pirojeyeke hiqûqî li welatê Turkiyê de dijî îşkenceyên zayendî di girtîgehan de hatiye weşandin, di 10 mehên borî hetanî niha, 15 jin ku goriyên îşkenceya zayendî bûne, seredana berpirsên vê pirojeyê kirine. Ji bilî vê serhejmariye fermî, divêt bihê gotin ku hejmara rast ya jinên ku di girtîgehên Turkiyê de hatine îşkence kirin zêdetir e. Çimku hejmereke zaf ji van jinan bi sedema çand û kultura paremayî ya civakê û li tisê canê xwe de, ditirsin qise bikin.

**Jêder: "irwomen"**

**Romannivîs Û Helbestvan, Serkan Birûsk:**

# "Lawaziya Wêjeya Kurmancî Di Romanê De Ye"

**Hevpeyvîn: Azad Kurdî**



***Serkan Birûsk kî ye?***

*Serkan Birûsk ji hêla Nisêbînê, ji aliyê Omeryan e. Herêma Omeryan ku weke eşîra Omeryan jî, tê bi nav kirin, devereke pir berfireh digire ber xwe. Ev herêm bi folklor, bi stran û stranbêj, bi rez û baxên xwe navdar e.*

*Serkan Birûsk li gundê Serê Kaniya Omeryan hatiye dinyayê. Wî xwendina seretayî û ya nêvî li Nisêbînê bi dawî aniye. Paşê ji bo xwendina bilind diçe Izmîrê. Li zanîngehê di beşa mîmariya peyzajê de bi cî dibe. Paşê derdikeve derveyî welêt. Gelek nivîs û xebatên wî yên edebî di kovar, rojname û malperan de belav bûne. Wî hejmarek bername bo Tvyê, li ser navdarên kurd û wêjeya kurdî amade kirine û belav kirine. Sê pirtûkên wî yên helbestan bi navên **"Awirên bi hêvî"**, 1999 weşanxaneya Rewşen li Almanyayê.**"Xem vedixwum bi tasa sor ji demê"**, 2000 weşanxaneya Medya li Swêdê. **"Peyvên êşmij"**, 2004 weşanxaneya Nûdem li Stenbolê. Nivîskar ji awira wergeran ve pir xurt e. Ji zimanê Tirkî û Swêdî hejmarek nivîs wergerandiye kurdî. Pirtûkên wî yên wergerê ev in; **"Muo û Pelle"**, **"Madiken û Ciwanên Îro"**.*

**Vê dawiyê romana "SÊ TERÎŞ" weke yekemîn berhema we ya romanê hate çap û belavkirin. Em ji te pîroz dikin. Çawa bû ku we biryar girt vê romanê binivîsin?**

**SB:** Min berê jî hejmarek berhêm pexşanî nivîsandibûn û belav kiribûn. Hê di sala 1996'an di serê min de plana nivîsandina deqeke dirêj hebû. Min wê demê çîrokek dirêj bi navê **Çend bîstik ji şoreşê** nivîsand û di kovara Avaşînê de balav kir. Dû re çend çîrokên din ên dirêj afirîn û di kovarên Nûdem û Avaşîn de belav bûn. Piştî van ceribandinan, meyl û bala min bêtir çû ser helbestê. Min bê navber helbest nivîsandin û belav kirin. Lê di serê min de her nivîsandina berhemeke dirêj ku karibe têkoşîna van bîst salên dawî bi hemû aliyên xwe di nava xwe de bihevîne hebû. Di van bîst salên dawî de gelê me li Bakurê Kurdistanê gelek êşên dijwar dîtin. Bi hezaran mirov hatin kuştin, sirgûn bûn, gundên wan hatin valakirin, dewletê rêxistinên tarî û gemarî ava kirin û ciwanên kurdan bi destên hevdu bi hev dane kuştin... Min jî bi vê berhemê xwest ez wêneyeke derveyî û hundirîn ya vê demê di keseyatiya çend ciwanan de bidim.

**Dixwazim li ser çîroka romanê bo me biaxivî. Mijara çîroka vê li ser çi ye û çawa bû ku we ew mijar ji romana xwe ya yekemîn re hilbijart?**

**SB:** Mijara romanê li ser evîn, têkoşîn, berxwedan û sirgûnê ye. Du ciwanên welatparêz û kurdperwer bi navê **Gulbihar** û **Dilovan** li zanîngehê dixwîn. Ew hem di nava kar û barê siyasî de ne û hem jî evîndarên hevdu ne. Lê pismamekî Gulbiharê heye. Ew jî, endamê rêxistina Hizbilahê ye. Ji sala 1990 û heta 1993'a, rêxistina Hizbilah bi alîkariya dewletê gelek ciwanên kurdperwer û dilsozên gelê kurd rolinîvro di nîvê çarşiyê de dikuştin û kesekî jî nevêrîbû xwe li wan bikira xwedî. Pismamê Gulbiharê dikeve rêya dotmama xwe. Ew ji mamê xwe re dibêje; an dê Gulbihar ji axa sar re be an jî, ew ê ji min re be. Ew mam û pismamê xwe bi kuştinê çavtirsandî dike. Gulbihar jî, bo xeterek neyê ser bav û birayên wê, ew vedigere Nisêbînê. Lê Gulbiharê jî, sozek ji hezkiriyê xwe re daye...

Di heman demê de Dilovan jî, ji ber protestokirina qetlîama Helepçeyê ji aliyê polîsan ve tê girtin. Ew çend mehekî di hepsê de dimîne. Piştî azad dibe, ew yekser tê Nisêbînê ku Gulbihara xwe birevîne Ewropayê. Lê Gulbihar dike nake nikare bav û birayê xwe di nava agirê Hizbilahiyan de bihêle û here. Ew dilê xwe di nava xwe de bedena xwe de difetisîne... Dilovan li Ewropayê nûçeya şehîdbûna Gulbiharê dibihîze. Gulbihara ku ji bo Pêşmergeyan xebat dikir, dikeve kemînekê û bi birîndarî tê girtin. Di encama lêdan û lêxistinên pir dijwar û hovane de, Gulbihar şehîd dikeve, wê di goreke nediyar de vedişêrin...

**Girîngiya her romanekê, di bikaranîna zimanê wê de ye. Zimanê romana "SÊ TERÎŞ" xwediyê çi taybetmendiyekê ye?**

**SB:** Min di vê romanê de pir girîngî da ziman. Min xwest ez hêz û tuwaniya zimanê kurdî nîşan bidim. Min di vê romanê de zimanê helbest, çîrok û gelêrî di nava hev de straye. Loma jî, min gelek formên vebêjeriyê di romanê de bikar anîne, da ku ez meydana zimanên fireh bikim.

Zimanê romana Sê Terîş bi qasî ku nûjen û helbestî ye, bi vê radeyê jî, ji devokên herêmî, gotinên pêşiyan, biwêjan û zargotina kurdî ya dewlemd bixwedî bûye. Bûyerên cuda û seyr ên di nava tevna romanê de hene, zimanê xwe yê taybet afirandine. Xewn, bêrî, poşmanî, bîranîn, monologa Dilovan a digel xwe, ajal û xwezayê ji derfetên taybet ên zimanê helbestvaniyê bixwedî bûne.

Dîsa min di vê berhemê de hewl da, ez zimanê xwe yê taybet bikar bînim. Bi hevokên kurmanciyê bileyîzim û ji wan hindek hevokên nû ava bikim.

**Bi baweriya we dîroka romannivîsiya Kurdî kengê dest pê kiriye, yan cîhanê çawa?**




**SB:** Dema gotin tê ser romannivîsiya pêşî ya kurdî, navê ku pêşî tê bîra min **Erebê Şemo** ye. Bo Ewropiyan Servantes û Don Kîşta wan çi be, bo min jî, **Ereb û Kela Dimdima** wî ew e. Erebê Şemo û kurdên Sovyeta berê hindek xebatên baş kirin. Bi qasî zanebûna min divê mirov li wir li hêlîna romana kurdî bigere. Hêkên ku wan di wê demê de danîn, îro bi firê dikevin.

Dû re Heciyê Cindî, Evdrehim Qazî û Îbrahîm Ehmed û hwd. Ji ber ku haya min ji van nivîskaran heye. Û min berhemên wan xwendine, ez bi wêrekî van navan hildidim.

Bi raya min mirov îro nikare romana kurdî bide ber romana cîhanê. Ev yek ji aliyê dîrokî, şert û mercên civakî de ne durist e. Rewşa civakî ya ku gelê me îro di navê de ye, li ber çavan e. Wek mînak zimanê kurdî hê jî li Turkiyeyê qedexe ye...

**Piraniya zimanzan û wêjevanên Kurd li ser vê baweriyê ne ku romannivîsiya Kurdî jar û qels e. Hûn sedemên vê yekê di çi de dibînin?**

**SB:** Ma wê çawa ne jar be? Ne dewleteke me ya navendî, ne ziman û ne jî alfabeyeke me ya standart heye. Zimanê me qedexe, çand û hêjayiyên me yên dîrokî hatine talankirin. Wekî din jî me wekî milet hê pirsgirêkên xwe yên bingehîn çareser nekirine. Şer, talan, berxwedan, koçberî, hejarî û bindestî heye û dema rewşa me ev be, em ê çawa karibin romanên xurt binivîsin ku jê re zimanekî pir dewlemend û berfireh pêwîst e.

Min li jorê behsa tecrûbeya kurdên Sovyetê kir, ji ber ku hejmarek faktorên destdar di wê demê de peyda bûn, me dît her çiqas hindik be jî, roman hatin nivîsandin.

Lê îro, rewş cuda ye. Tu nivîskarên kurmanciyê di dibistanên kurdî de fêrî xwendin û nivîsandina ziman nebûne. Em bi keda xwe ya ferdî hewl didin, xwe fêrî zimanê nivîsandinê bikin. Rewşa ku nivîskar û ziman têde ev e.

Lê dîsa jî, di van salên dawî de hejmarek roman derdikevin, nivîskarên ciwan pir hewl didin xwe da ku karibin bi zimanê kurmancî berhemên wêjeyî biafirînin.

**Nirxandina we li ser rewşa wêjeya Kurdî çi ye?**

**SB:** Ez ê ji ber van sedemên diyar nirxandina xwe bi wêja kurmanciyê bi sînor bikim. Ji ber ku min bi xwe heta niha ji romana Pêşmerge û Jana Gel (bi tîpên latînî û kurmancî) pêştir tu romanên din bi tu zaravayên din ên kurdiyê nexwendine. Lewra jî, ez xwe ji bo nirxandineke giştî ya wêjeya kurdî mafdar nabînim.

Rewşa wêjeya kurmanciyê bi giştî ber bi başiyê de diçe. Di warê helbestê de kurmancan radeyeke baş bi destê xwe ve anîne û roj bi roj jî, hejmara ciwanên ku radihêjin pênûsê pirtir dibin. Ji xwe pirtûkên helbestan ji pirtûkên din ên hemû cureyên wêjeyî pir pirtir in.

Di warê çîrokê de jî, rewş yek kêm yek zêde baş e. Mirov pêşketineke berbiçav dibîne. Lewaziya ku heye di warê romanê de ye. Romana kurmancî hê di destpêkê de ye. Romanên ku bi her awayî karibin bersiva hunera xwe bidin, mixabin hê jî nehatine nivîsandin. Çend romanên me yên ku nêzîkayiyê li pîvanên giştî yên romanê dikin hene, lê ev jî têr nakin. Mijarên roman, çîrok û helbestên me hê jî, pirrengî û berfireh nebûne. Jiyana rojane, bîranîn û serpêhatî bi zimanê axaftinê di nava forma romanê de têne dubarekirin. Piraniya nivîskarên me xwe bo avakirina zimanê xwe yê wêjeyî nawestînin. Mirov tu taybetiyeke xweser ya zimanî, lehengî, wesifdana hawîr û derûnî di berheman de nabîne. Yanî wek ku min li jor got; hê jî romanên ku bi giştî karibin di bin barê xwe de rabin pir hindik in.

**Ez spas dikim ku we dema xwe ji me re veqetand û pirs bersivandin.**

**SB:** Ez jî spas dikim.

# ROMANÊN SIYASÎ

**Lokman Polat**

Di nav edebiyata cîhanê de gelek romanên siyasî hene. Di nav edebiyata rûsî ya klasîk û ya nûjen de li ser dema desthilatdariya Çar û paşê jî ya Stalîn hinek romanên ku naveroka wan bi giranî siyasî ne, hatin weşandin.

Roman îcada Ewropiyan e û di nav edebiyata Ewropiyan de jî gelek romanên siyasî, bi taybetî jî yên li ser dema dîktatoriya faşîst ya Hîtler û Musolonî hene. Di edebiyata Rojhilata Navîn de, anku edebiyata Ereban, farisan, tirkan û kurdan de romanên siyasî hindik in. Gelo çima? Rojhilata navîn weke doşeka siyasetê ye û li wir hertişt siyasî ye yan jî bi siyasetê ve girêdayî ye.

Rojhilata Navîn heta niha ji demokrasiyê bêpar maye û sazûmanên nedemokratîk hatine sazkirin û birêvebiriya dewletên Rojhilata Navîn ji alî dîktatoran ve hatiye birêvebirin. Dîktatorên wekî M. Kemal, Î. Înunu, Şah Riza Pehlewî, Xumeynî, Kral Faysal, Emîr û Siltanên dewletên mîrî yên ereban, Sadam Husên û Hafiz Esed bi salan li ser hikum bûne û li xelkê zilim kirine. Di nav edebiyata gel û neteweyên Rojhilata Navîn de li ser van dîktatoran çend romanên siyasî hatine nivîsîn, ez nizanim. Lêbelê bi qasê ku ez zanim hejmara romanên siyasî yên nivîskarên Rojhilata Navîn hindik in.

Di nav edebiyata kurdî ya nûjen de jî romanên siyasî hindik in. Herçiqas piraniya nivîskarên kurd –yên bakurê Kurdistanê-berê çep bûn jî, niha piraniya wan dev ji fikir û ramanên çepîtiyê berdane. Yên ku dev ji çepîtiyê berdane bi refleksa redbûnê li çepîtiyê – û li derbasbûna xwe - dinêrin û ew hetanî karin xwe ji siyasetê dûr dixin û qet naxwazin ku romanên siyasî binivîsin.



Hinek nivîskarên kokkurd bi tirkî romanên siyasî nivîsîne, lê berhemên wan ji edebiyata kurdî re nayê hesibandin.

Herçiqas hinek nivîskar xwe ji siyasetê dûr bixin jî, berhemên wan di hinek waran de bi rengên siyasî hatine xemilandin. Edebiyat û romana kurdî di hêlek de bi siyasetê ve têkildar e. Dema di romaneke de cînahek bê afirandin, di wê cîhanê de şêweya rêxistina civakî û têkiliyên sosyal, desthilatdariya li ser civakê, nakokiyên sosyal – civakî, li hêleke zilm û zordarî û li hêleke têkoşîn, serhildan û berxwedan hebe û ev hemû tişt di nav cîhana romanê de bi tîp, figur û karekterên taybetî bê ravekirin, bi riya edebiyatê – û romanê – şêweya sosyal civakî û siyasî ya wê cîhanê tê pêşkêşkirin û ev tişt ji bo fêrbûn û perwerdebûna civakê re dibe haceteke. Cihaneke weha bê rengê siyasî nayê afirandin.

Li Tirkiyê romannivîserên kemalîst û yên Îslamî di romanên xwe de şêweya jiyana sosyal civakî ya kemalîstan û Îslamîstan li gor mentalîteya xwe datînin holê û propaganda jiyana civakî li gor fikr û ramanên xwe di romanên xwe de pêşkêşê civakê dikin, li ser xwendevanan tesîr dikin û civakê dixin bin bandora ramanên xwe yên kemalîst û Îslamî.

Nivîskarên ku di zanîna tercîhên xwe yên siyasî de ne, ji hêla estetîk û zanîstiya sosyal civakî û siyasî ve di afirandinên berhemên xwe de serketîne. Romannivîser neheqî û nakokiyên civakî û siyasî bi afirandina şiklê alegorî, fantazî, îronî, xeyalî, realîstî, mîzahî, sembolî û hwd û bi şêweya edebî, siyasî tînin zimên.

# ÇÎROKÊN RENGÎN

Bi navê **”Çîrokên Rengîn”** pirtûkeke nû ya kurteçîrokên Lokman Polat derket.

Temenê Lokman Polat bû 50 sal. Wî li derveyî welêt, anku li Ewropayê gelek pirtûkên kurteçîrokan, roman û kurteroman weşand. Hinek pirtûkên wî li Stenbolê jî hatin çapkirin û gihîştin destê xwendevanên kurd yên li welêt.

Lêbelê piranîya pirtûkên Lokman Polat li Ewropayê man û îmkanê wî yê aborî tunebû ku ew wan carek din li Stenbolê biweşîne û bigîşîne destê xwendevanên welêt.




Lokman Polat bi saya dostên xwe yên nivîskar û hinek xwendevanên kurd ji her pirtûkeke xwe kurteçîrokeke helbijart û wan di yek pirtûkek de li Stenbolê weşand û pêşkêşê xwendevanên kurd yên li welêt kir.

Ev pirtûka nivîskar ya hilbijartina kurteçîrokan ji bo pênce saliya wî, diyariya wî ya ji bo xwendevanan e. Em hêvîdarin ku xwendevanên kurd van kurteçîrokan bi dilxweşî bixwînin.

Kîjan kurteçîrok ji kîjan pirtûka nivîskar hatiye wergirtin û ew pirtûka wî di kîjan salî de hatiye weşandin, li dawiya kurteçîrokê hatiye nivîsîn.

Ji bo ku her kurteçîrokeke ji pirtûkek hatiye wergirtin û hemû kurteçîrokan bi tevahî ahengeke rengîn pêk anî ye û her çîrok dîmenek ji rengê jîyanê nîşan dide, loma me jî navê pirtûkê kire **çîrokên rengîn**.

**Weşanên Helwest**

# PIREÇANDÎ

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



Mafê jiyanê, parastina azadî û demokrasiyê, bikaranîna zimên û pêşvebirina çand û hunerê ya ku mirov di qada civakî de bi dest dixe, hemû xwe dispêrin hin pîvang û kirîterên gerdûnî û navneteweyî. Belê pirê caran ev mafên rewa ji hêla kesên ku ev pîvang bi destê xwe danîne, têne binpêkirin û mandelekirin.

Mafê jiyanê û parastina azadiyê, du mafên mirovbûn û civakîbûnê yên sereke ne. Ji bo ku mirov bikaribe azad bibe, divê bijî; her wiha ji bo ku bikaribe bijî jî divê azad bibe. Lewre, ji bo kesên mirî hewcetî qet bi azadî û demokrasiyê nîn e.

Mafê parastina çandê, mafê bikaranîna zimên, mafê bicihanîna şert û mercên ol û baweriyê û derbirîna ramanê her yek ji wan mafê mirov ê çarenîn, rewa û bivênevê ye. Her mirovê ruhber difikire û hest û hizrên xwe yên cihê cihê di dil û mêjiyê xwe de vedihewîne. Belê heke wan hest û fikrên xwe nikaribe bi awayekî aşkera derbibire û vebêje, tu qîmet û wateya wê namîne. Ji bo wê divê tenê ne mafê fikr û ramanê, pêşî mafê derbirîna fikr û ramanê were parastin. Mirov mafên xwe yên rewa, nikare tenê bi serê xwe biparêze; ancax tevlî civaka xwe dikare biparêze. Ango her mirovek wekî parçeyekî civaka xwe ye. Girêdayî civaka xwe tevdigere, pê re dijî û tevlî wê azad û serfiraz dibe. Takekes dibe, civak dibe, tu ji wan nikarin bêyî hevdû azad bibin. Çawa ku civak bi saya kesên azadîparêz û têkoşer ber bi azadiyê ve dimeşe; her wisa takekes jî ancax di civakeke serbixwe de dikare azad bibe û bijî.

Mafê jiyanê ji bo hemû mirovên ku li ser rûyê dinê dijîn û jiyana xwe ya rojane didomînin, derbas dibe. Tu kes, ji yê/ya din ne birûmetir û ne jî bêrûmetir e. Mafê tu kesî ji yê/ya din ne kêmtir û ne jî zêdetir e. Ne tu kes ji bo kesî dijî û ne jî kes ji bo tu kesî... Her kes yeksan û azad e li gorî pîvang û kirîterên gerdûnî û mirovî. Belê mixabin îro ev yek tenê li ser rûyê kaxizê dimîne û derbasî kardariya jiyana civakî nabe.

Li gorî danezana mafê mirovan û kirîterên navneteweyî, mafê herkesî heye ku ziman, çand û hunera xwe biparêze û pêşve bibe. Belê yên ku ziman çand û hunera gelan qedexe dikin û mafê parastina van nirxan binpê dikin jî, dîsa heman kes û hêz in zoran û desthilatdar in.

Di rastiya jiyanê de ev kes û hêz, pireçandiyê qebûl nakin û ji bo entegrasyon (biyekbûn) û asimîlasyona(bişavtina)gelan hewl didin û dixebitin. Der barê vê yekê de nimûneyên pir balkêş hene. Îro gelek netewe-dewletên dinê, ji bo ku xwe ragihînin erdnîgariyên dewlemend û erd û welatên gelan dagir bikin û tê de biçêrin, çi ji destê wan tê dikin. Ev yek jî dibe sedema şer û pevçûnên bêoxir û talankirina welatan. Îcar cihê ku şer û pevçûn ji ser qut nebe, çendî dikare çand û pireçandiya xwe biparêze û pêşve bibe. Jixwe netewe-dewletên îroyîn, ji bo ku yeke neteweyeke çêkirî pêk bînin bi zagon, qanûn û pest û kotekên xwe çandeke çêkirî, yekezimanekî çêkirî û civakeke çêkirî ava dikin. Her çi netewe dewletên heyî tev li ser vî riknî hatine damezrandin. Hebûna wan tu car ne durist û rewa ye.

Dereqanûnî û dereexlaqî ye. Gelek netewe-dewlet gel, ol, nîjad û kêmneteweyên welatan mandele dikin û wan wekî yeke neteweyekê nîşan didin. Bi vê jî nayên ser; ziman, ol, bawerî, çand û hunera gelan qedexe dikin. Ev qedexekirin dibe sedema bêkesayetî û bênasnamebûneke din. Mirov ne dikarin kelepûra xwe ya heyî biparêzin û ne jî dikarin bi çanda hêzên serdest re li hev bikin. Ev mandelekirin û qedexekirina ku bi hezaran sal didome, îro hêsantir bûye û bûye karekî ji rêzê yê rojane. Îro roj li ser rûyê dinê gelek kes ji ber zar û zimanê xwe, ji ber çand û hunera xwe, ji ber ol û baweriya xwe, ji ber cil û bergên xwe, ji ber reng û dengê xwe têne girtin, darizandin û dardekirin.

Heçkû pireçandî tehma jiyanê ye. Pireçandî ewledariya civakê ye. Pireçandî dewlemediya xwezayê ye. Pireçandî rengê dinyayê ye. Qedexekirin û astengkirina pireçandiyê, hilqetandina gul û kulîlkên rengîn yên tewre bi tewre û qelihandina cureyên mirovahiyê yên ser rûyê dinê ye.

Pergalên sermayedar gelek caran ji bo perjewendiyên xwe navê pireçandî, pirerengî û piredengiyê tînin zimên û hinceta navneteweyîbûnê bi tundwarî bi lêv dikin. Heta gelek caran diparêzin jî. Belê pireçandiya ku ew diparêzin ne bi armanca azadî û demokratîkbûna gel û civakê ye. Bi neyt û mebesta mêtin û dagirkirina welatan û bindestkirina gelên dinê ye.

Kaniya Helbestan

Letîf Epozdemir

## RÊWENG

Do hatin
Îro diçin
Ne dîtin
Tam û lezetek
Ji fêkiyên jiyanê
Ûmir borî
Roj derbaz bûn
Man di derya
Kûr a cewr û cefayê
Diyar nebû
Ne şev ne roj
Li Dinyayê
Bi dilşahî sefayek.

Çend derî vebûn
Hezar ewqas
Li rûyê wan hatin girtin
Mînanî Zebûn
Li pişt derî
Mane tenê
Ewan nedît
Ji mirovan
Tû siyanet û hurmet
Yan ji xêr û wefayek.

Yar li benda evînê
Dipê roja
Wê jî ne kir
Di jiyanê mirazek
Bi dest nayên
Rojên çûyî
Ûmir borî
Pal dane jînê
Di destan de misasek.

Ey hozan bes e êdî
Meke gazin
Ev qeder ne tenê
Ya te ye, na,
Hene wiha, tenê nînî
Bi sedan û hezar in
Lewra ew jî mînanî te
Bi fîgan û hewar in.

Me qet ne dît
Xêr û xweşî
Li vê Dinya pemberû
Çav man xerîb ji kenê re
Umrê sipî
Bûye tarî
Bi moran û mij û dû..

**Çeprast:**
1. Şêxê mezin yê Êzidiyan – Berevajî navê çiyayekî Kurdistanê ye.
2. Navê karagahekê bû di fîlmên cinayî (qetl û kuştinan) de – Rî.
3. Di Farsî de tê wateya "xwe" – Berevajî navê yekemîn Seroka Meclisa Nûneran e di Amerîkayê de – Berevajî navê rûbarekî ye di Kurdistanê de.
4. Germahî – Navê desthilatdariyekê bû di serdemê Madan de.
5. Berevajî navê bajareke Kurdistanê ye – Dibêjin Kuroşê Kebîr li wir ji dayîk bûye.
6. Navê rêxistinekê ye di Lubnanê de – Navê bircekê ye di Firansayê de.
7. Berevajî navê cure genimekê ye.
8. Di Farsî de tê wateya "cendek" – Rex
9. Bajareke Kurdistanê ye – Rast û bilind.
10. Di hewayê sar de mirov tûşî vê nexweşiyê dibe.

**Serjêr:**
1. Xwarinek e – Xweşmêr.
2. Çilpikên dara sipîndarê dema mirov bibire û biçîne – Heke ev peyva bihê ducarîkirin - zarokên sava pê dirazên.
3. Mam – Helbestvanekî navdar ê Kurd bû – Ala.
4. Cotkaran ew tiştê hewce ye – Bajarekî Îranê ye – Ba?
5. Nûçegihaniyeke Îranê ye – Navê botekê ye.
6. Berevajî tê wateya Saziya Navneteweyî ya Balafiran – Di Erebî de tê wateya "rûbar".
7. Partiya Hîtler – Rûbarek e di Afrîqayê de.
8. Heywanek e – Kurtkiriya peyva "kuro".
9. Agirê.
10. Rêberê Partiya Şoreşger a "Rêya Pirtîrêj" bû û li dijî hikûmeta Pêrû şer dikir – Navê hevjîna "Waydêngêr", parêzerê perwendeya Dr. Qasimlo bû.




# Duyemîn Festîvala Rewşenbîrî Ya Kurdî Li Duhokê Dawî Pê Hat

Di roja 08.11.2006'an, de Duyemîn Ferstîvala Rewşenbîrî a Kurdî di hola Xanî li Zanînegha Duhokê di bin zêrevaniya Parêzgeha Duhokê de birêve çû.

Di vê festîvalê de rewşenbîr, çîroknivîs, helbestvan û zimanzanên Kurd li her çar parçên Kurdistanê û ji Ewropa, Soviyetistana berê û Mîrîtiyê Ereb yên Hevgirtî û herwiha hin nivîskar û rewşenbîrên Ereb li bajarê Bexda û Mûsilê jî pişikdarî vê festîvalê bûn. Hewceye bihê gotin ku çendîn dezgehên rewşenbîrî yên Kurd jî beşdarî vê mihrîcanê bûn mîna:

- Enistîtûya Kurd li Stenbolê
- Enistîtûya Kurd li Berlînê
- Komeleya Nivîslarên Kurd li Amedê
- Komeleya Nivîskarên Kurd li Swêdê
- Navenda PEN a Kurd li Alamaniyayê
- Hevgiritna Rewşenbîrên Kurd yên Rojava li Derve
- Weşanxaneya Doz û Avesta li Stenbolê

Di festîvalê de nivîskar û rewşenbîrên Kurd bi awayên cur bi cur mijar û berhemên xwe yên derheq ziman û wêjeya Kurdî, helbest, çîrok, roman û ... pêşkêş kirin. Herwiha çendîn semînarên hizrî û rexneyî ji aliyê pispor û şarezayên Kurd ve hatin lidarxistin. Her di doma vê festîvalê de 3'ê şevên taybet bi helbesta Kurdî ji aliyê helbestvanên Kurd ve birêve çû.

Festîvalê piştî 3'ê roja kar û xebata bê rawestan bi taybetî li ser rewşa zimanê Kurdî, roja 10.11.2006'an, dawî bi kar û xebatên xwe anî.



## Bersîva Xaçepirsa Hejmara 49'an




## Enstîtûya Kelepora Kurdî Li Silêmaniyê Du Kitêbên Kurdî-Latînî Weşand

Enstîtûya Kelepora Kurdî, ku navenda wê li başûrê Kurdistanê li bajarê Silêmaniyê ye, bi tîpên latînî du kitêbên kurdî/kurmancî belav kirin. Herdu kitêb jî ji aliyê Mustafa Gazî ve hatine amade kirin ku navê yekê Gurzek ji Zargotina Zarokan/Dîsko Dîsko Danîno û ya din Nan Tajî be Tu Kîroşk bî/Nifir û Duayeyên Kurdî ye. Pirtûk bi hevkariya Weşanxaneya Arasê li Hewlêrê hatine çap kirin.

Pirtûka Gurzek ji Zargotina Zarokan, bi piranî folklora devera Qerecdax û Diyarbekrê vedigire ku ser bi bakûrê Kurdistanê ne. Pirtûk ji gelek reng û babetên cur bi cur yên zargotina zarokan pêk tê; wekî mamik, zûgotinok, meselok, meselokên kurt û gotinên lîstikan, jimartin, çîrok, çend dab û nerîtên kurdan, lîstik û lorî. Pirtûka duyem Nifir û Duayên Kurdî ji ji nifir û duayên deverên bakûrê Kurdistanê yên Qerecdax, Diyarbekir, Mêrdîn, Botan û Xerzan pêk tê. Amadekarê kitêban Mustafa Gazî di sala 1958'an de li bakûrê Kurdistanê li bajarkê Siwêregê ji dayik bûye ku ser bi bajarê Rihayê ye. Gazî ev serê 25 salan e li ser mûzîk û folklora kurdî kar dike. Ji van her du pirtûkan pê ve sê kitêbên wî hatine çap kirin.

Li aliyê din, ji van herdu pirtûkan pê ve enstîtûyê bi tîpên latînî pirtûka Cemîla Celîl Klamêd Cime'ta Kurda û pirtûka Selih Heydo Dûrikên Kurdî/Kurdistana Sûriyeyê (2 cîld) belav kirin. Herweha CD yek bi navê Mînyatûrên Folklora Kurdî ku pêk tê ji 33 stranên kurdên Ermenistanê




çap kir, ku ji aliyê Cemîla Celîl ve hatine aranje kirin û Nejad Emîn tevî Orkestraya Senfonîk ya Yerêvanê îcra kirine. Dîsa DVD bi navê Dengê Êzîdxan belav kir ku pêk tê ji qewl û beyt û stranên êzidiyên devera Şengalê.

Enstîtû niha jî li ser projeya Ayşe Şanê kar dike da ko hemû stranên wê tevî notayên wan wekî CD çap bike. Her weha stranên devera Goyan ko dikeve Herêma Botan dê tevî notayên wan wekî kitêb çap bike.

Enstîtûya Kelepora Kurdî ku dezgeheke sivîl û nehikûmî ye, di sala 2003an de li bajarê Silêmanî hate damezradin heta niha li ser folklor, dîrok, hunera her çar parçeyên Kurdistanê kar û xebat kiriye û berhem û CD çap kirine. Li aliyê din ve enstîtuyê meha borî şaxa xwe li bajarê Dihokê vekir da ko bikaribe baştir li ser folklor, huner û dîroka kurdan kar bike.

**Jêder: Malpera Nefelê**

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php

Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@googlemail.com

# Fîlmek Sînemayî Li Ser Komara Kurdistanê

Li gora hin çavkaniyên kurdî, Şîrketeke Kanadî ya hilbirîna fîlmên sînemayê, dê fîlmekê li ser Komara Kurdistanê ya li Mehabadê û jiyana **Qazî Mihemed** bikşîne, ev fîlm dê li ser rewşa Komara Kurdistanê berî û dema avakirina wê û piştî rûxandina wê raweste, herweha ew ê li ser jiyana Qazî Mihemed jî raweste.



Lewra şîrketê bangek daye ku her kesê agahî, belge, an wêne nik wan hebin ji şîrketê re rêkin, şîrketê ji rexê xwe ve soz daye ku ew ê diyariyan bide wan kesên ku alîkariya wan bikin. Her kesê ku agahî û belge nik wan hebin dikarin ji derhênerê kurd **Mihemed Henîf Mihemed** re rêkin li ser :

GLORIA ENTERTAINMENT.INC

50-BURN HILL- RD # 2403

SCARBOROUGH
ONTARIO, M1L4R3 CANADA
TELL/ FAX: 011-416-686-8241
CELL: 001- 416-671-4344
E- MAIL: gloriaent@hotmail.com

**Jêder: Malpera Rizgari**

---

# 5 Giravên Gola Urmiyê Tevlî Hişkatiyê Bûn

Kêmbûna ava gola Urmiyê bûye sedema wê ku 5 girav ji 9 giravên vê golê tevlî hişkatiyê bibin. Dr. Îsmaîl Kehrum, karnasê jîngehê di hevpeyvîneke de bi “Radio Fardayê” re got: Gola Urmiyê herî mezin gola ya Îranê ye. Ev gole ewqas mezin û berfireh e ku guhertina seqa û hewayê pêk tîne.

Rez û baxçeyên Sêv û Tirî di vê para Îran, Îraq û Turkiyê de berminet û li bin siya vê golê de ne. Ev gole piştî “Behr Elmeyt” di Filistînê de duyemîn gola sûr û 20’mîn gola mezin a cîhanê tê hesibandin.

Dirêjiya Gola Urmiyê ji Bakûr bo Başûr 135 K.M, panatiya wê jî 18 hetanî 55 kîlometran e. Kûrahiya wê jî 16 metr e. Ji 570000



**Wêne – Gola Sûr ya Urmiyê**

Hektar(her Hektar 10000 Metr e) ava vê golê nêzîk bi 100 hezar Hektarên wê bûne bi şoreke.

Ji sala 1974’an heya niha, qasê avê 5 metr û 27 cm kêm kiriye. Dr. Kehrum dibêje lêdayîna Bendavên li ser wan rûbarên (14 Heb) ku ava vê golê pêk tînin, qasê ava hewce ji bo vê golê ji 6 Milyar Metran bi 1/5 Milyar metr kêm kiriye.

**Jêder: “Radio Farda”**

# Keçeke 17 salî diya xwe kuşt û bavê xwe jî birîndar kir

Keçeke 17 salîn ya ji malbateke musilman ku rûniştiyê Australyayê ye, ji bo xatirê evînê, û di encama pevçûnê ba malbata xwe re, diya xwe kuşt û bavê xwe jî brîndar kir...

Li bajarê Gold Coast a herêma Queensland, hilketî di Rojhilatê Bakurê Australyayê, keçeke 17 salîn ya ji malbateke musilman bi kêrê hêrîşe bav û diya xwe kir. Di encamê de diya wê ya 41 salîn mir û bavê wê yê 49 salî jî nexweşxaneyê re hat şandin. Li gor raporeke di dest de, keça hatî girtin, polîs re gotiye ku ew ji xortekî hej dike û dixwast ji bo evîndariya wan bibe kiristiyan. Lewre bavê wê gef li wê xawrine ku dê wê bikuje. Dûre di encama pevçûnê de, wê bi kêrê li bav û diya xwe xistiye.

Hîn nediyar e ka bav û diya wê ji kîjan welatê musilman hatibûn Australyayê.

**Jêder: Avestakurd.info**

---

# Sibê Rojên Wêjeyê Li Amedê Dest Pê Dibe

4’emîn Rojên Wêjeyê li Diyarbekirê ya îsal di navbera 16 û 19.11.2006’an ku ji aliyê Şaredariya Bajarê mezin a Amedê tê lidarxistin, bi dirûşma **“ji bo cîhaneke bi aştî wêje”** sibê dest pê dibe.



Dê gelek nivîskar û rewşenbîr bi vê boneyê bêne cem hev.

Di çarçoveya 4’emîn Rojên Wêjeyê li Diyarbekirê de dê Konferansa Ziman a Amedê bi navê **“Konferansa Parastin û perwerdehiya Kurdî”** bihê lidarxistin.

# Di 50 salan de 58 caran zewiciye

Hemwelatiyekî Seûdî, bi navê Salih El Saîrî, di 50 salên jiyê xwe de 58 caran zewiciye. Navhatî dixwaze têkeve nava pirtûka Guinness.(Siralk Guinness hunermendê derhîner yê fîlman e). Hêjayî gotinê ye ku Salih El Saîrî 9 law û bi dehan nevî hene.



**Jêder: Avestakurd.info**